Bidestveanîna mafên neteweyî yên gelê Kurd di çarçoveya Îranek Demokratîk û Federalî de

Hejmar: 66
30'ê Hezîran
Buha: 150 Tûmen

agiri

Rojnameya panzdehrojî ya siyasî, çandî û giştî

Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê diweşîne

## Bi Beşdariya PDK Îranê, Enternasyonala Sosyalîs Li Swîsê Civiya



Enternasyonala Sosyalîst rojên 29 û 30'ê Hezîrana 2007'an, bi beşdariya gellek kesayetiyên siyasî û nûnerên partiyên endam yên vê rêxistina navneteweyî li welatê Swîsê civiya.
Şandeke PDK Îranê bi serokatiya Dr. Xusro Ebdulahî di vê civînê de beşdarî kir.
Birêz Celal Talebanî, Serok Komarê Îraqê û Birêz Mesûd Barzanî jî tevlî civîna ES'ê bûn û axivîn...

# Kirîza Benzînê, Starta Dorpêçên Aborî



Wezareta Petrolê ya Îranê çend rojan berî niha biryarek eşkere kir ku ji bo Benzînê sînor diyarî kirine. Her li ser wê biryara Wezaretê li gellek bajarên Îranê û bi taybet li bajarên Kurdakincî de alozî û xwenîşandan çê bûne û xelkê nerazî erîşî benzînxaneyan kirine ku di encam de pêtir ji 20 benzînxane şewitandine. Herwha li dijî rejîma Îranê û Serok Komarê Îranê jî dirûşm avêtine. Hêzên Rejîma Komara Îslamî jî wekî pîşeya xwe ya her car, êrîş kirine ser xelkê û teqe ji wan kirin ku hêj nediyar e ku radeya kuştî û birîndaran çend kes in û çend kes jî hatine girtin û binçavkirin.

Li gor biryara Wezaretê li Îranê kesê/a ku otumbêla wî/ê ya taybet hebe, dikare mehane 100 lîtr Benzînê bistîne. Tirimbêlên Taksî jî ku rojane dixebitin, dikarin mehane 800 lîtr Benzînê bistînin. Herweha Tirimbêlên ku nîvroj dixebitin, dikarin mehane 600 lîtr bistînin. Li gorî biryarê otumbêlên fermî jî mehane 300 lîtr par hene, wekî dinê dikarin 4 qatan biha û giran bikirrin.

Biryara han li demekê de hatiye dayîn ku Îran li cîhanê de herî zêde Benzînê difroşe û duyemîn welat di hinartina niftê de ye. Lê ji ber ku palavgeyên wê kêm in, %40 Benzîna xwe ji derve tîne.

Îranê ji bo îsal 2/5 mîlyar dolar budce ji bo standina Benzînê veqetandibû, di halekê de ku par ev hejmare 5 mîlyar dolar bû.

Çend rojek e ku kêmbûna benzînê yê bûye kirîz û pirsgirêkek mezin li hemû bajarên Îranê û xelk li hember vê biryara rejîmê bi xurtî nerazî ye. Ev rewşe ji ber baykot û dorpêçên aborî yên ser Îranê yên li dor destbernedan ji dewlemendkirina Uraniyûmê ye û dijberîkirin bi raya giştî ya navneteweyî re ye.

## Tawanbarên Enfalê Gihîştin Cezayê Xwe



Dadgeha Bilind a Tawanan ya Îraqê, li 24.06.2007'an de, piştî çend rûniştinan biryara darvekirina ***Elî Hesen El Mecîd (Elî Kîmyayî)***, ***Sultan Haşim*** û ***Husên Tikrîtî*** der kir. Her wiha Sabir El Dorî û Ferhan Mutleg bi hepsa heta hetayî û Tahir Elan jî ji ber nebûna belgeyên hewce, serbest hate berdan.

Elî Kîmyayî û hevalên wî li Prosesa Enfal'ê û bikaranîna hemû cure çek û sîlahan li dijî gelê Kurdistanê beşdar bûne û di cîbicîkirina siyasetên rejîma Bees'ê û Sedamê dîktator û jînosaydkirina gelê Kurdistanê de gellek ektîv bûne. Herwiha dadgeha han biryara qerebûkirina goriyên Enfal'ê jî der kir.

## Kîmiyabarana Bajarê Serdeştê Piştî 20 Salan



Salekê beriya ku rejîma Bees a Îraqê ya berê bixwaze bajarê Helebçeyê bi bombeyên Kîmyayî bimirîne û cineyeteke mezin di dîroka reş û biyom a xwe de tomar bike, roja 28.06.1987'an, seet 16.30'ê êvarê bajarê Serdeştê li Kurdistana Îranê da ber êrîşa bombeyê Kîmyayî. Di encama vê kiryara dijî mirovan de rejîma Bees ya Îraqê, 7 bombeyên 550 kîloyî yên gaza Kîmyayî a xerdelê barandin ser bajarê 20000 kesî yê wê demê yê Serdeştê û bêtirî 100 kes di cî de kuştin û zêdetirî 12 000 kes jî bi xurtî birîndar bûn.

Îsal 20'emîn salvegera tal û nexweş ya wê cinayeta hov e. Hêj bandorên xirab û neyînî yên vê bomebaranê li ser jiyan û tendurustiya xelkê vî bajarî tê dîtin. Niha jî di salê de dehan kes ji vî bajarî ji ber bandora çekên Kîmyayî jiyana xwe ji dest didin û nexweşên zaf jî hene û piraniya wan ji xizmetên derman kirinê bêpar in.

# PDK Îranê Bi Fermî Ji Civîna Opozîsyona Îranê Re Li Parîsê Hate Gazîkirin

*Rapor:* **Rehîm Reşîdî**
*Wergeran:* **Omîd Esxeran**

Di bin vavê **civîna hevpêwendiya Îranê** de, dejimêr 9:45 deqîqeyên sibêdeya roja înê, 25.03.1386(5.06.2007)'an, beşek ji hêzên dijber ên Komara Îslamî ya Îranê, li bajarê Parîsê lihev civiyan.

Di vê civînê de ku 3 rojan dom hebû, pitir ji 80 kes beşdar bûn. Kongireya Neteweyên Îrana Federal, PDK Îranê, Komeleya Zehmetkêşên Şoerşgir ên Kurdistana Îranê, Partiya Demokratîk a Gel a Îranê û hin kesayetiyên siyasî yên opozîsyona Îranê ku weke xwe û ne weke nûnerên rêxistin yan tevgereke siyasî beşdarî civîna han bibûn, gotarên xwe pêşkêş kirin.

Pêkînerên vê civînê piranî berê ser bi tevgera "Seltenetxwah"(alîgirên Paşatiyê) di Îranê de bûn ku niha guhertin bi ser bîr û rayê wan de hatiye û bi ser vê baweriyê ne ku divêt sîstema desthilatê di Îranê de ji aliyê xelkê ve û di hilbijartineke azad û demokratîk de were hilbijartin.

Di rastî de armanc ji civîna vê carê eva bû ku bi beşdariya aliyên din, nemaze Kongireya Neteweyên Îrana Federal û partiyên Kurdî, bigihgîjin pilatformeke cihê baweriyê û di vê rêyê de ji xwe re heqaniyetê bidest bixin, lê ji ber ku geleleyekî dewlemend di vî warî de nebû, nekarîn tu serkevtinekê bidest bixin. Hêjayî gotinê ye ku di vê civînê de nûnerê PDKÎranê li derveyî welat, gotara yekemîn pêşkêş kir, wî kêfxweşiya xwe li ser gazîkirina bi fermî ya nûnerê Kongireya Neteweyên Îrana Federal ji bo vê civînê derbirî û li ser bisetveanîna mafên neteweyî yên neteweyên Îranê bi cidî tekez kir. Piştre nûnerê Komeleya Zehmetkêşên Şoerşgir a Kurdistana Îranê, axivî û dûre dor gihîşte pêşkêşkirina gotara Kongireya Neteweyên Îrana Federal ku tê de li ser federalîzekirina pêşeroja Îranê tekez hatibû kirin. Gotera vê kongireyê hemû basên civîna han xistine bin bandora xwe û piraniya beşdaran bi erênî bîr û ra li ser diguherîn.



Bandora gotara KNÎF'ê bi qasekê bû ku pêkhîner û birêveberên vê civînê bi fermî daxwaz ji birêz Şaho Hisênî, nûnerê PDK Îranê kirin ku bi merema dîtina rêçareyekê ji bo çareserkirina pirsgirêka neteweyî di Îranê de civîneke taybetî lidar bixin. Nûnerê PDK Îranê tevî pêşwazîkirinê ji vê daxwazê, da zanîn ku bi bê beşdarbûna nûnerê KNÎF û Komeleya Şorigêrên Zehmetkêş ên Kurdistana Îranê beşdariyê di tu civîneke taybetî û daxistî de nake. Di encamê de birêz Hemze Bayezîdî, bi nûneriya KNÎF'ê, Şaho Husênî, Dr. Mîro Eliyar, Ebdulriza Kerîmî bi nuneriya PDK Îzranê, Nahîd Behmenî û Zagros Xusrewî bi nûneriya Komeleya Şoreşgerên Zehmetkêş ên Kurdistana Îranê, Kambîz Rosta û Şehriyar Ahî û Maşala Selîmî ji aliyê beranber beşdarî vê civînê bûn.

Di vê civîna taybetî de tevî arastekirina rexneyan ji nêrîna pawanxwazane a hêzên seranserî û civîna Parîsê li derheq nebûna helwesta ron û jêhatî derheq çareserkirina pirsgirêka neteweyî di Îranê de, li ser domandina gotûbêj û danûstandinan tekez hate kirin.

Hewce ye were gotinê ku bi merema dîtina rêçareyekê ji bo çareserkirna pirsgirêka neteweyî di Îranê de ku ciyê pesenda hemû aliyekê be, biryar hate girtin ku komîsyonek were pêk anîn ku hetanî 3 mehan gelaleyekê bo vê meremê amade bike, piştre ev gelaleye ji aliyê civata rêberiya hilbijartî a civîna Parîsê ve ku 15 kes in, were pesendkirin. Pêwîst e ku were gotin Ziya Sedroleşrafî ji KNÎF'ê, Ebdulriza Kerîmî ji aliyê PDK Îranê, Nahîd Behmenî ji Komeleya Şoreşger, Kambîz Rosta û Şehriyar Ahî bi nûneriya civîna Parîsê, endamên komîsyona navhatî ne. Hêjayî gotinê ye ku KNÎF'ê, tevî PDK Îranê û Komeleya Şoreşger ên Kurdistana Îranê dane zanîn ku hetanî lihevkirina bê girêpiçk a rêberiya Civîna Parîsê li derheq çawaniya rêçareya pirsgirêka neteweyî di Îranê de, naçin nava tu hevalbendiyekê, lewra xwe ji berbijarkirinê ji bo beşdarbûn di civata rêberiyê de parastin.

Hewce ye bihê gotin ku xala herî berçav a vê rûniştinê di vê çendê de bû ku KNÎF biwêrane li ser federalîzekirina Îrana pêşerojê bîsrar bû û helwest û nêrînên wê girîng û ciyê baldanê hatin hesibandin.

Xala qels a vê civînê eva bû ku hewl dihate dan ku kesayetî û rêxistin di hilbijartina civata rêberiyê de xwediyê yek deng bin, vê mijarê ji aliyê nûnerê Kongirê, PDK Îranê û Komeleya Şoreşger ve dengê nerênî wergirt. Lê hinek ji taqiman her bona vê çendê ku navê wan di nava navan de be, bi bê guhdan bi zirarên vî karî, hevdem bi bê hebûna helwest û bernameya jêhatî ji aliyê Civîna Parîsê ve ji bo çareserkirina pirsgirêka neteweyî di Îrana piştî Komara Îslamî de, li cihê derbirîna helwestê, siyaseta hevahengbûn û xwe rêxistinê tevî birêveberên civîna Parîsê girtin pêşiya xwe, bêy vê hindê ku bikarin fermîbûnê ji xwe re bidestve bînin, ev hinde jî nîşaniya vê rastiyê ye ku ev taqime ji hemû aliyekê ve xewle bûye.

## YCDK Îranê Daxwazê Ji Ciwanan Dike Ku Beşdarî Rê Û Resma Sala 2007'an Ya Bibîranîna Dr. Qasimlo Li Pirlaşizê Bibin

***Bangewaz:***

*Ji bo hemû endam û alîgirên YCDK Îranê li Danîmarkê*
*Ciwanên ezîz û birûmet!*
*Şoreşvanên rêya Dr. Qasimlo!*

Bi boneya 18'emîn salvegera terorkirina Dr. Qasimlo û hevalên wî li Otrîşê, Yekîtiya Ciwanên Demokrat yên Kurdistana Îranê li Danîmarkê amadekariyên seredanekê bo Goristana Pirlaşizê(li Parîsê) di 13.07.2007'an de dike.

Merem ji vê seredanê nûkirina peymanê bi Dr. Qasimloyê nemir û sozdana bi wî û hevalên wî re ye ku hêj li çepera şoreş, xebat û berwedanê de mane û dê heta dawîn dilopa xwîna xwe jî rêvîngên rêya wî bi rêberiya PDK Îranê bibin.

Lewre em daxwazê ji hemû endam û alîgirên ezîz dikin ku beşdarê wê seredanê bibin.



**Ji bo zaniyariyên zêde têkiliyê bi vî navnîşanê jêrîn bigrin:**
**E - Mail: info@lawan.dk**

# Derdê Gelên Îranê Azadî Û Demokrasî Ye An Kuştina Selman Ruşdî?

**Şehab Xalidî**

Piştî vê ku çend rojan berî niha Meleka Birîtaniyayê nîşana "Şiwaliye" da Selman Ruşdî, nivîskarê navdar yê pirtûka "Ayetên Şeytanî", berpirsiyarên dewleta Îran, Pakistanê û hinek ji pêkhateyên olî di welatên Îslamî de derheq vê pirsê nerazîbûna xwe eyan kirin.

Selman Ruşdî di 19.06.1947'an, ji malbateke Misilman di bajarê Bembeî ya Hindistanê de ji dayîk bû, bavê wî parêzer û diya wî jî mamostayê xwendegehê bû.

Piştî koçberbûna malbata wî bo derveyî welat, wî xwendina xwe li xwendegeha Kîngz Kalic a Londonê de domand û piştî wê li zanîngeha Kimbirîç di koleja dîrokê de xwendina xwe domand.

Wî yekemîn romana xwe di sala 1975'an de nivîsand. Şeş salan piştî wê, Selman Ruşdî karî romana xwe ya duyemîn li jêr navê "Zarokên Nîva Şevê" bi dawî bîne. Vê romanê bo cara yekemîn navê wî derxist. Wî di sala 1987'an de karî ku xelata bi navê "Bukir" wergire.

Selman Ruşdî di sala 1988'an de pirtûka "Ayetên Şeytanî" da weşandin ku yek ji romanên herî naskirî ên cîhanê ye.

Ev pirtûka cara yekemîn li welatê Hindistanê, di ciyê ji dayîkbûna vî nivîskarî de hate qedexekirin û her di heman mehê de, ew pirtûk li Pakistanê û li Afrîqaya Başûr de jî hate nava refa wan pirtûkên qedexekirî. Piştî çend heftiyan ew pirtûk li piraniya welatên Îslamî de jî hate qedexekirin.

Di meha Şibata sala 1989'an de, li meşeke pan û berfireh a nerazîbûnê di Îslam Abada Pakistanê li dijî Selman Ruşdî û pirtûka wî de, şeş kes hatne kuştin.

Çend mehan piştî weşandina pirtûka "Ayetên Şeytanî", Xumêynî rêberê pêşîn ê Hikûmeta Îslamî a Îranê di rêkevta 25.11.1367 (14.02.1988)'an biryara zibarê (fitwayê) li dijî Selman Ruşdî derkir, ku deqê hukmê wî bi vî awayî bû: *Ez gişt Misilmanên gernas yên seraserê cîhanê agehdar dikim ku nivîskarê pirtûka "Ayetên Şeytanî" ku pirtûka wî li dijî Îslam, Pêxember û Quranê hatiye çap û weşandin, her wiha ew kesên ku dest di weşandina vê pirtûkê de hene, bi îdamê têne mehkûmkirin."*

Her wiha Xumêynî di vî hukmî de tekez kiribû ku: *"Ez ji Misilmanên xwedî xîret dixwazim ku heke li her derekê evne dîtin, bilez wan îdam bikin, da ku êdî kes curetê neke ku bêhurmetiyê bi sînorên pîroz (muqedesatên)ên Misilmanan bike, û her kesê/a di vê rêyê de bihê kuştin, şehîd e, heke Xwedê bixwaze"*

Birîtaniyayê li 07.03.1989'an de têkiliyên xwe ên dîplomatîk bi Îranê re qut kirin.

Piştî derkirina vê fitwayê, Binyata 15'ê Xurdad (18'ê Cozerdan)ê hinek xelat ji bo wan kesana ku bikarin vê fitwayê bi kiryar birêve bibin, diyarî kir û piştî wê ev xelat zêde kirin ku di dawiyê de gihîşte 2.8 milyon dolarî.




Herwiha heftiya rabihurî nûçegihaniya "Fars" ragihand ku girûpekê li jêr navê "Navenda Rêzgirtina Ji Şehîdên Serhildana Cîhana Îslamê" xeleteke 150 hezar dolarî bo rêveberê hukmê îdama Selman Ruşdî diyarî kiriye.

Vê navendê di sala 2004(1383)'an de, xelata 100 hezar dolarî bo rêveberên vê hukmî diyarî kiribû, ku piştî bexşîna nîşana "Şiwaliye" bi vî nivîskarî, ew xelat kirne 150 hezar dolar.

Îranê li sala 1998'an, di çarçoveya lihevhatinekê tevî Birîtaniyayê, ev fitwa hilweşand, lê Melayên tundrew her niha jî dibêjin ev fitwaya di ciyê xwe de ye û divêt rêve here.

Ruşdî yek ji wan 950 kesa ye ku evsal bi boneya cejna jidayîkbûna Meleka Birîtaniyayê naznav bi wan hatne bexşîn.

Selman Ruşdî di sala 1990'an de di daxuyaniyekê de daxwaza lêborînê ji Misilmanan kir, lê piştî heyamekê, di hevpeyvînekê de ev lêborîn bi şaşiya herî mezin a di jiyana xwe de zanî.

Wî çaxî ku Xumêynî ew fitwa derkir, taze şerê Îran û Îraqê bi dawî hatibû û Xumêynî biryarnameya 598'ê ya Konseya Ewlekariyê qebûl kiribû û Xumêynî ku wî çaxî diruşma *"Şer şer heta serkevtinê"* dida, yan dirûşma ji *"Rizgariya Qudsê rêya Kerbelayê ve"* dida, lê negihîşte çi yek ji wan armancên xwe yên qirêj û gemar, lewma dîsan dixwast ku navê wî bikeve ser zar û zimanan, li ser radyo û televîzyonan.

Ewa bû ku ya Xumêynî dixwast Xwedê jê re şand. Selman Ruşdî roman nivîsand û Xumêynî nûçeyek bihîst ku dibêjin pirtûka Selman Ruşdî li dijî Îslamê ye, lewra baştirîn derfet bû ku Xumêynî ji xwe re piropagendeyan bike.

Lê eva çend meh bi ser vê meselê re derbas bibû, lê Xumêynî taze ev nûçe bihîstibû! Dewleta Erebistana Seûdî bi fermî li dijî nivîskarê vê pirtukê doz vekiribû û rexne li Birîtaniyayê girtibû ku çawan wan îzna belavbûna vê pirtûkê daye? Xumêynî ji vê yekê ditirsiya ku heke ji karwan bi cî bimîne, dê rêberiya cîhana Îslamê ji dest bide, û taze direng jî bû, lewra "Alê Siûd" rêberiya tevgera rexnegirane li dijî vê pirtûkê bi dest ve girtibû. Xumêynî ku daxwaza rêberiya cîhana Îslamê dikir, ditirsiya ku ew rêberiya ji dest de derbikeve.

Di rastî de, Xumêynî bê vê yekê ku bizane çi di nava vê pirtûkê de ye, nivîskarê vê pirtûkê bi kafir û "Murted" binav kiribû.

Bi vî awayî bû ku serkomarê wî çaxî jî, roja 15.03.1989'an wekî derfeta dawî ji bo kuştina Selman Ruşdî danîn û xatircem bûn ku berî vê rêkevtê Misilman yê wî kafirî (helbet bi qewlê desthilatdarên rejîmê) bikujin.

Di rastî de, Selman Ruşdî li jêr çetra azadiya çapemeniyan de bû ku ew pirtûka romanê nivîsandibû, lê heke em wisa danên ku karê wî mifaha şaş ji azadiya nivîsandin û çapemeniya be, lê fitwaya Xumêynî destdirêjî bû bo ser mafê hakimiyeta welatekê û binpêkirina yasa û pirensîpên navnetewî û kareke dûr ji aqil û mentiqê bûye.

Herwiha ew hemû piropagendeyên Xumêynî bûne sebebê pitir navdarbûna Selman Ruşdî û pirtûka wî. Desthilatdarên rejîmê niha jî bas ji vê fitwayê dikin û dibêjin ev fitwa divêt birêve here.

Desthilatdarên rejîmê her carê dixwazin ku gelên Îranê bi pirsekê ve mijûl bikin û bi vî awayî bigihîjne armancên xwe yên gemar. Lê neteweyên hişyar ên Îranê qet serê xwe bi van pirsan ve mijû nakin. Gelên Îranê bi bêy çi duiliyekê li pey azadî û demokrasiyê ne. Azadî û demokrasî dikare derdê neteweyên bindest ên Îranê derman bike, ne kuştina Selman Ruşdî.

**Çavkaî:**
**Malpera BBC"**
**Malpera Radio Farda"**
**Rojnameya "Kurdistan", hejmar 158**

# Di Bîranîna Çar Efserên Şehîd Yên 19'ê Hezîrana 1947'an Ya Zayînî

**Rehîm Reşîdî**
**W: Gulnam**

Her wek em dizanin 29'ê Cozerdanê (19'ê Hezîranê), salvegera lidarvekirina çar Efserên Kurd yên welatparêz, di sala 1947'an ya Zayînî de, bi destê karbidestên dijî Kurd yên rejîma Paşatî ya Îraqê ye.

Serheng **Mistefa Xoşnav**, serheng **Ezet Ebdulezîz**, Serwan **Mihemed Mehmûd Qudsî** û serheng **Xeyrola Ebdulkerîm**, ew çar Efserên Arteşa Îraqê bûn ku di dema berxwedana Kurdên başûr bi rêberiya nemir Mela Mistefa Barzanî, dest ji xizmet bi hêza dagirker berdan û bi awayekî çeleng di şoreşa Kurdistanê de beşdarî kirin.

Rohn û eşkere ye piştî damezrandina Komara Kurdistanê bi serokatiya Pêşewa Qazî Mihemed di sala 1946'an de, şoreşvanên kurd ên germiyanê bi hev re di ximetkirin bi vê Komarê rolekî mezin û ji bîr nekirî lîstin.

Kar û xizmetên wan hertim dê weke rûpeleke zêrîn a hevpêwendiya neteweyî ya gelê Kurd di dîrokê de bimîne û azadîxwazên Kurd û Kurdistanê berdewam di tekoşîna xwe de weke tişteke pir buha dê lê binêrin û bi merema hevpêwendî û hevqederiya gelê azadîxwaz yê xwe hîn bibin û waneyên wan dikin çirayê tekoşînê, bona bidestveanna desthilat û serweriya neteweyî.

Eşkere ye ku di zirûfa wê demê de zanebûn, pisporî û ezmûna van Efserên welatparêz ji bo rêxistina Hêza Neteweyî a Kurd ku erkê parêzvaniyê ji Komara Kurdistanê li stû bû, pir giring û berçav bû.

Efserên xebatkar tevî pêlek ji Efserên din yên niştîmanperwer, zanîn û pisporiya xwe ji rêxistin û nûjenkirina herçiqas zêdetir ya hêza neteweyî ya Komara Kurdistanê terxan kirin. Mistefa Xoşnav û Mihemed Mehmûdê şoreşvan, weke şêwirmendên çekdarî erk li stû girtibûn, Efserên din jî her yek li gor karîna xwe fermandehiya beşekê ji hêzên Komarê bona parastina destkevtên neteweyî yên wê komarê li stû girtin. Bi vî awayî xizmeteke jêhatî û jibîrnekirî pêşkêşî Komara Kurdistanê û armancên bilind û neteweyî ên wê kirin. Bi birêvebirina wan erkan jî, navê pîroz ê wan dê bo hertim weke stêrkên geş yên esmanê tevgera rizgarîxwaziya Kurd û Kurdistanê bi ronahî bimîne.



Izet Ebdulezîz    Xeyrula Ebdulkerîm



Mihemed Qudsî    Mistefa Xweşnav

Piştî hiloşîna Komara Kurdistanê, ew çar Efserên şoreşger tevî hindek ji Kurdên din yên Başûrê Kurdistanê li ser soz û binav lêborîna Karbidestên wê demê yên Bexdayê, vegeriyane Îraqê. Lê bi kul û kesereke giran ve rejîma dijî gelî ya Îraqê, bi piştkirin bi ehd û sozên xwe li derheq lêborîna wan şoreşvanan, her çar leşker di bervara 29'ê Cozerdana 1947'an ya Zayînî de, bi hêceta xizmet bi bizava rizgarîxwazane ya Kurd, lidar vekirin.

Tu şik û gumanek tê de nine ku heke ev Efserên şoreşger di pêxema xizmetkirin bi xebata berheq ya gelê Kurd, biwêrane waz ji pile û payeyên dewletê anîn û bi hemû karîna xwe, lêzanîn û pisporiya xwe ji bo pêşveçûna zêdetir ya şoreşê terxan kirin, îro egîdên Kurd tevî wê çendê ku rolê pêşengyia wan serwerane ji bo desthilgirtin ji pileya civakî û jiyana taybetî ya xwe bilind dinirxînin, bi şanaziyê ve çav ji mêrxasiya wan dikin û weke sembol û rênîşander jê mêze dikin.

Heke rejîma Îraqê ev qehreman tevî çendên din, jinav birin, îro rojê nav û hêviyên bilind ên wan zindî ne û tewr beşek ji welatê wan bi sedema cangoriya ewên ku di bin sîbera bibandor a wan û tekoşerên din yên tevgera Kurdîtiyê de, ev rêbaze girtine pêşiya xwe, ji aliyeke din ve desthilata bikujên wan çûye zibildaniya dîrokê û ji mînakên wan re jî bi hikmê dîrokê çarenivîseke baştir ji wan nabe.

Nav û bîranîna wan hertim pîroz û bilind be.

## Rê Û Resmek Bi Boneya 20'emîn Salvegera Kîmyabarana Serdeştê Birêve Çû

Roja 28.06.2007'an, bi beşdariya 3-4 hezar kesan, rê û resmek bi boneya 20'emîn salvegera kîmyabarana bajarê Serdeştê li wî bajarî de birêve çû. Beşdarên rê û resmê çûne ser gora şehîdên vê cinayetê û destegulên sor li ser qebrên wan danîn. Piştre Pêşnimêjê bajarê Serdeştê axaftinek li ser wê bûyera biêş pêşkêş kir. Herwiha ji aliyê pêşkêşkarê rê û resmê ve jî çend parçe helbest bi vê boneyê ve hatin pêşkêşkirin.

Di beşeke din a rê û resma han de, girûpa Şaxevanî ya bajarê Serdeştê piştî hatinexwar ji çiyayê hemberî goristanê, destegulên rêz û emegnasiyê li ser gora şehîdên vê cinayetê danîn.

Hêjayî gotinê ye ku qirar bû bi beşdariya Hedad Adil, Serokê Meclîsa Şêwra Îslamî ya rejîmê, rê û resmek bi vê hincetê li bajarê Serdeştê de birêve biçe, lê bi sedema neçûna wî bo Serdeştê, rê û resm nehat lidarxistin.



Herweha qirar bû ku bi beşdariya taqimên Karatê yên welatên Îngilîs, Fransa, Norwej, Lehistan, Japon û taqima netewî ya Îranê jî kêbirkêyek Karateyê birêve biçe, lê ew tîm bi taqimên Karatê yên welatên Felestîn, Turkiye, Îraq û Efxanistanê guherîn. Herweha tîma millî ya karateya Îranê jî li vê pêşbirkêyê de beşdarî nekir.

# Şandek Komîsyona Kar û Barên Têkiliyên Derve Ya PDK Îranê Tevî Şandeke Partiya "Fremskrittspartfirp" ê Li Welatê Norwejê Hevdîtina Pêk Anî



Navend Nûçeyan ya PDK Îranê da zanîn, roja 21.06.2007'an Şandeke Komîsyona Kar û Barên Têkiliyên Derve Ya Komîteya PDK Îranê li welatê Norwejê di hola Parlemana wî welatî, bi heyetekê ji Partiya "Fremskrittspartfirp"ê re hevdîtin pêk anî.

Di rûniştineke germ û dostane de, şandeya PDK Îranê baseke kurt li ser dîroka PDK Îranê û bername û siyasetên partiya me û her wiha li ser rewşa Îran û herêmê pêşkêş kir û bal kişande ser fitne û têkderiyên rejîma Komara Îslamî ya Îranê li deverê, nemaze maytêkirinên vê rejîmê di karê hundir yê welatên Îraq, Lubnan, Filistîn û Efxanistanê.

Di vê der barê de, şanda Norwejî bi tevahî tevî şanda PDK Îranê hevbîr û raman bûn. Her du alî li ser vê baweriyê bi tevahî hevfikir bûn ku rejîma Komara Îslamî a Îranê gefeke micid û mezin bo ser xelkê Îranê ye û ne tenê divêt hemû cîhan û welatên herêmê berahiya pêvajoya bidestxistina vê hikûmetê bi çekên komkuj bigirin, belkî divê civaka navneteweyî bi lez û micid di fikra peydakirina rêçareyeke jêhatî û pêwîst ji bo guherîna sîstema Komara Îslamî ya Îranê bibe.

Şandeya Komîsyona Kar û Barên Têkiliyên Derve Ya Komîteya PDK Îranê pêkhatî bû ji: **Fireydûn Elîxanî**, Berpirsiyarê Komîsyonê û **Ezîm Elyasî**, endamê Komîsyonê û heyeta Partiya "Fremskrittspartfirp"ê ji van kesane pêk hatibû: "**Morten Hoglund**", endamê Parlemanê û berpirsiyarê Desteya Nûneriya Norwejê li Rêxistina Ewlekarî û Alîkariya Ewropayê û endamê Komîteya Kar û Barên Pêwendiyên Navneteweyî yê partiya han û her wiha "**Palarne Devidser**", Ravêjkarê Siyaseta Derve yê Partiya han bûn.

Hêjayî gotinê ye ku Partiya "Fremskrittspartfirp" duyemîn partiya mezin ya Norwejê ye.

# Gerrek Kurt Di Dîrokê De ...

**Amadekar: Nûredîn Sofîzade**

***16.06.1947:*** **Mela Mistefa Barzanî** tevî 500 kes ji Barzaniyên çekdar ên xwe piştî 20 rojan rêçûnê, ji çemê **Eres** ê derbasî nava axa Soviyeta berê bûn.

***16.06.2006:*** Konferanseke navneteweyî bi beşdariya **Mistefa Hicrî**, Sekreterê Giştî yê PDK Îranê û nûnerên neteweyên din ên Îranê û zaf kesayetiyên siyasî û akademîk ên biyanî li jêr navê "**Îran ber bi kîderê ve diçe"**, di yek ji holên Parlemana Fransayê de birêve çû. Konferans ji aliyê Enistîtuya Kurdî ya Parîsê bi egera serdana birêz Mistefa Hicrî hate lidarxistin.

***17.06.1980:*** Radyo **Dengê Kurdistana Îranê** bi cehd û bizava PDK Îranê û nemaze xebatên şehîd Dr. Ebdulrehman Qasimlo hate damezirandin û kete xizmeta gelê Kurd.

***17.06.1984:*** **Rehman Erebî**, endamê Komîte Şaristana Urmiyê di girtîxana rejîma Komara Îslamî de hate îdamkirin.

***18.06.1986:*** Hêzên Komara Îslamî a Îranê êrîşek berfireh kirin ser gundê **Dişe** û tevî berxwedaniya Pêşmergeyên PDK Îranê ên **Hêza Şaho** berbirû bûn. Di vê şerê de ku hêzên dijmin derbekî giran xwarin, mixabin 6 Pêşmerge bi navên: **Mirad Weledbeygî**, **Behmen Selîmî**, **Ebdulrehman Xeyatî**, **Fetah Fetahî**, **Hadî Mihemedî** û **Emîn Mesedî** şehîd bûn.

***19.06.1919:*** Qewimîna Şerê Derbenda Bazyanê di navbera Şoreşvanên Kurd bi serkêşiya **Şêx Mehmûd** û hêzên Birîtanyayê. Piştî şerekî bi xwîn û giran, aqibet Kurd rastî têkçûnê hatin û Şêx Mehmûd bi birîndarî hate girtin û dûrxistin.

***19.06.1947:*** Îdamkirina 4 Efserên şoreşvan ên Kurd ji aliyê hikûmeta Îraqê bi sûça beşdarîkirin di Hikûmeta Komara Kurdistanê li Mehabadê de. Ew 4 Efserên şehîd ev bûn: **Mistefa Xoşnav**, **Xeyrula Ebdulkerîm**, **Mihemed Mehmûd** û **Ezet Ebdulezîz.**

***19.06.1988:*** **Mihemed Şerîf Bizindar**, Fermanderê Pel ji Hêza Şaho tevî Pêşmergeyekî din bi navê **Zahid Pakzad**, li Kûselana devera Merîwanê şehîd bûn.

***20.06.1789:*** Şoreşa Mezin ya Firansayê dest pê kir.

***20.06.1960:*** Helbestvanê Welatparêz yê Kurd, **Pîre Mêrd** koça dawiyê kir.

***21.06.1930:*** Şehîdbûna rêberê navdar yê Kurd **Simayîl Axayê Simîtko (Simkoyê Şikak)** ji aliyê rejîma Pehlewî ji rêya Komployeke îxanetê li bajarê Şinoyê.

***21.06.1971:*** Pêkhatina Konferansa 3'yan ya PDK Îranê li bajarê Koyê û diyarîkirina rêbaza siyasî ya partiyê.

***21.06.1990:*** Bi sedema erdhejeke xurt li bajarên Rûdber, Zencan û Gîlan a Îranê, bi dehan hezar kesan jiyana xwe ji dest da.

***22.06.1996:*** Li ser tixûbê Îran û Turkiyê li çiyayê **Duguh,** bi sedema êrîşa Arteşa Turkiyê û li encama şerekî dijwar û nexwastî de, mixabin 8 Pêşmergên PDK Îranê li Komîte Şaristana Selmasê bi navên jêrîn şehîd bûn. **Sadiq Hesenzade, Emîr Cehandîde, Cemal Raî, Şemsedîn Resûlî, Eskender Elîzade, Qadir Emîrzade, Resûl Hemîdî** û **Ebdî Baqoyî**.

***24.06.1921:*** Di demekê de ku li piraniya deverên Kurdistanê de serhildanên Kurdan hebûn, **Çirçîl** di biryarekê de ragehand ku divêt dewleta Kurdan bê avakirin, heya ku dever aştî û aramiyê xwe ve dibîne.

***25.06.1945:*** Li bajarê Sanfiransîskoyê, bi beşdariya nûnerên 50 welatan Menşûra Rêxistina Neteweyên Yekbûyî hate îmzakirin.

***25.06.1985:*** **Cehanbexş Nasirî**, Fermanderê Pel ji **Hêza Dalaho,** tevî Kadroyekî bi navê **Emîn Mihemed** li Çiyayê Şêrekel li devera Ciwanroyê şehîd bûn.

***26.06:*** Roja Cîhanî ya Xebat Li Dijî Madeyên Hişber "Narkotîkê".

***26.06.1924:*** Bombebarana bajarê Silêmaniyê, ji aliyê hêzên Birîtanyayê û girtina wî bajarî.

***26.06.1950:*** **Rezm Ara** bû Serok Wezîrê Îranê.

***26.06.1972:*** Hunermendê dengxweş **Hesen Zîrek,** li bajarê Bokanê koça dawiyê kir.

***28.06.1985:*** **Resûl Azirexş**, Fermanderê Lik ji Hêza Aware li herêma Pîranşarê hate şehîdkirin.

***28.06.1987:*** Di dirêjiya şerê Îran û Îraqê de, balafirên rejîma cinayetkar ya Sedam, bajarê **Serdeştê** bi bombeyên kîmyayî bombaran kirin ku sedan kes ji welatiyên Kurd ên sivîl bûne qurbanî.

***28.06.1988:*** **Sidîq Fîrozî**, Cîgirê Komîteya Navendî yê PDK Îranê piştî şerekî mêrxasane li herêma Kamiyaranê hate şehîdkirin.

***29.06.1925:*** **Şêx Seîdê Pîran**, rêberê şoreşa Kurd tevî 46 kes ji şoreşvanên din ji aliyê dewleta Turkiyê ve hatine lidarvekirin.

***30.06.1985:*** Li bajarê Bane de, şerekî dijwar di navbera Pêşmergên PDK Îranê û hêzên rejîmê de qewimî, piştî 8 seet şer ku hêzên dujmin têde têk çû, mixabin **Sergord Kerîm Eliyar**, endamê Komîteya Navendî yê PDK Îranê tevî 3 Pêşmergên din bi navên: **Ebabekir Kakebira**, **Silêman Mam Pîrotî** û **Hemze Şêxeyî** şehîd bû.

# Hiqûqên Bingehîn, Rexne Û Şiroveya Qanûna Bingehîn Ya Îranê

**Beşa 3**



**Seyîd Mihemed Qurdoyî Mîlan**
**melanmohamad@yahoo.com**
**W; Dara Natiq**

Her wek tê xuyakirin berhevdana qanûnên bingehîn ên welatên cur bi cur feydeyên zaf garantî kiriye, ku **çawaniya peydakirina rih û rîşa hêz û desthilatê** û **bingeha rewabûna wê di her civakekê de**, **pêkhateya rêxistinî û nizma desthilatdar** û **nasandina navendên biryarder** ji wan yekan in.

Qanûna bingehîn, di hin welatan de, dîmanekî nivîskî ye ji hêvî û armancên her neteweyekê û di hin welatên din jî, belge û dukomentek e ku pêkhateyên bingehîn yên hikûmetê û erk û wezîfeyên wan dide xuyakirin.

**Qanûnê din:**

Yek ji jêderên qanûnên bingehîn, birêvebirina yasa û qanûnên hewce yên her welatekê ye. Bi taybetî ew qanûn û yasayên ku diyarîkerê çarçoveyên bingehîn bûne yan jî zêrevanê çawaniya rêxistina pêwendiyên navbera dezgehên cur bi cur yên siyasî û hemû netewan bi hev re ye. Bo nimûne: qanûnên kêrhatîbûn û erkên Serok Komar, qanûnên hilbijartinê, qanûnên damezirandina partî û Komeleyên siyasî û pêkanîna heyetên lêkolîner, qanûnên ragihandinê û ... ji wan qanûn û yasayan, tên hesibandin ku weke jêderên qanûna bingehîn ku ji aliyê karzanan we mifah jê tê wergirtin.

Pejirandiyên Dezgeha birêveberî pejirandina nivîsarên dewletî û herwiha ayînnameyên birêvaberiyê ku di rêza qanûnên asayî de, tên hesibandin, hin caran rol û giringiyekî taybetî di nasandina naverok û pêkhatina qanûna bingehîn a hemû civakekê de dilîze.

**Pêkanîna dadgeh û rêxistinên girêdayî bi dezgeha dadê ve:**

Yek ji jêderên qanûna bingehîn, bîr û hizrên baskirî ne ku di hin waran de yasanas û hiqûqzanên welêt mifahê jê werdigirin. Dadgehîkirinên xewdî bas û gengeşeyên siyasî û hikmên derkirî li ser wan, hertim bûye hegera pêkanîna bizavên hizrî û siyasî di civakê de û bala tex û qatên civakê bo aliyê xwe dikişînin.

Ew bîr û rayên ku dadwerên dadgehan û berpirsiyarên derkirina biryaran(hukman) eşkere kirine, di rastî de eyankerê cura lêniherîna beşek ji desthilatê bi pirsên di nava civakê de ne, yan jî bi berçav birêve çûne, ku çavkaniyeke gellek girîng ji bo vê şax ji zanista hiqûqê ye. Deng û bîr û rayên saziyên ser bi dezgeha qezayî jî caran rolekî weha dilîzin. Bo mînak, heke Dîwana Edaleta Îranê pejirandiyeke dewletî betal bike, di rastî de yan radeya desthilata dezgeha rêveberiyê berteng kiriye, ew jî helbet bi armanca parastina mafê xelkê yan jî rolê xwe di warê serrastkirina şiroveyên berpirsiyarên rêveberê di yasaya bingehîn de dilîze.

Çawaniya lênihêrîna dadwerên Dîwana Edaleta Îdarî li ser pirsên baslêkirî û naveroka hukmên derkirî, nîşanderê cura lênihêrîna dadmendên xwedî kar di wê dezgehê bi nîzama siyasî ya hakim li ser civakê û qasê desthilat û karên wan dibe.

**Gotûbêjên nûnerên Parlemanê:**

Ew gotûbêj ku di dema danîna yasayan de cîbicî dibe, çavkaniyeke gellek baş e bona naskirina çawaniya pêkhatina hêz û qawetê. cîbicî bûna wê û şêweya serûber kirina hêzên sê aliyane ku gişt di bin destê rêber de ne û radeya desthilata wan li berçav e.

Di gişt welatên cîhanêde heyetên taybet dibne biryarderê nivîsandin û danîna pêşnûsa yasaya bingehîn. ku piştî pejirandina dawiyê, heyetên baskirî, dixin ber referandomê, ku ji van heyetan bo meclîsa bijarteyan tê şandin. li welatê Îranê ji navê meclîsa bijarteyan mifah hatiye wergirtin. Baldana bi gotûbêjên van cure meclîsan, desteberiya têgihîştin ji sebeb û pejirandina her madeyeke yasayî û her eslek ji usûlên yasaya bingehîn bûne û heta çavkaniyeke gellek girîng ji bo şiroveya azîn û usûlên yasaya bingehîn bihê nasîn. vira em tevî vê pirsê berbirû dibin ku heke usûlên yasaya bingehîn ji rêya referandomê ve yanî bi awayekî rasterast ji aliyê xelkê ve be, bes hebûna meclîsa bijareteyan di serrastkirina wê de dikare xwediyê çî wate û mijarekê be? Bo mînek, di esla 44'ê a yasaya bingehîn de, nîzama aborî a Îranê bi sê beşan tê parvekirin. Beşa dewletî xwedîtiya giştî li jêr destê dewletê de ye, û beşa zibare(teawinî) weke şîrket û saziyên zibareya berhemanîn û dabeşkirinê hatine nasîn û beşa taybetî jî pêk hatiye ji wê ji cotkar, pezdarî, pîşesazî û xizmetan bûye ku tewawkerê çalakiyên aborî di beşa dewletî û beşa zibare(teawinî) de ne. Bi sebebê vê yekê ku aborî di beşa dewletî û beşa zibare de bi awayekî hûr nehatiye pênasekirin, lewra hertim vê behsê her dirêjî hebûye, ku gelo rastî mirov dikare banka taybetî jî ava bike?

Gelo beşa teybetî dikare îzgehên radyo û televîzyonan ava bike?

Baldana bi behs û gengeşeyên meclîsa bijarteyan ew şik û gumanên di esla 44'ê de kêmekê jî nekariye ji nav bibe. Herwiha bi baldana bi behs û gengeşeyên nûnerên Meclîsa Şêvra Îslamî jî, îsbat divêt ku ew dibe rola nehêlana şik û gumanan û şiroveyên sererast ji qanûn û usûlên bingehîn bilîze.

## Ji Mensûr Teyfûrî Re, 6 Meh Zîndan

Ji aliyê Dadgeha Şoreşa Îslamî ya Merîwanê ve, ji Mensûr Teyfûrî, nivîskarê bi nav û deng ê Siqizê û endamê Navenda Nivîskarên Îran û Kurdistanê re, roja 26.03.1386(16.06.2007)'an, 6 meh hikmê zîndanê hate sepandin.

Teyfûrî, bi buxtana derbasbûna neyasayî ji sînor, hebûna têkiliyan tevî partiyên siyasî yên Kurdistanê û xebat li dijî tenahiya neteweyî, çend rojan di girtîxaneya Îdareya Ewlekariya Sine de ma û piştre bi danîna berdêleke 30 milyon tûmenî, serbest hate berdan.

Hewce ye were gotin ku navhatî berhemên zaf di warên hizr û siyasetê de weke pirtûkên "Tecrûbeyî Mudêrnîte"(Ceribîna Nûjeniyê), "Le Mer Lokaç"(Derheq Lokaç), "Tiyoriyekanî Ferheng"(Teoriyên Çandê), "Komele Witarekanî Ciwanî nasî"(Komele gotarên ciwanî nasînê), wergerandina ser zimanê Kurdî.

# Rewşa Nebaş Ya Goriyên Bikarînerên Madeyên Bêhişker Li Komara Îslamî Ya Îranê

Malpera "*Iranpressnews*"ê ji zimanê Nûçegihaniya "IRNA"yê eşkere kir ku xincî ew navendên ku bi awayê qanûnî û di çarçoveya yasayê û di bin zêrevaniya saziyên taybet de dixebitin, pir navendên din jî bi awayên ne qanûnî, li bajar û heta gundan de mijûlê çalakiyê ne û seba piropagendeyên zaf û berfireh karîne bibin xwediyê pêşkeftin û dahateke baş.

Bi lênihêrînek li ser navendên ne yasayî ên "***destberdana ji îtiyadê***" ku bêşik ji aliyê kesên ne şareza û bê pirsporî û vala ji zaniyariyên tendurustiyê ve tên birêvebirin, xuya dike ku çalakiyên navendên han û dana dermanan di bin navê "*destjêberdana îtiyadê*" de, ne tenê nabe sebebê rizgarbûna kesên ku madeyên sirker bikar tînin (mutad), belkî encamên nebaş ên zayendî û ruhî jî ji wan re pêk tîne û heta dibe sebebê mirina wan.

Hindek ji van navendan bi piropagendeyên weke *devjêberdana îtiyadê* karîne xelkê bixapînin û bibin xwediyê dahateke baş.

Di vê navberê de ewa ku ji bo kesên mutad û malbatên wan ciyê nigeraniyê ye, kifşnebûna navendên yasayî û ne qanûnî ji hev in. Rastî eva ye ku li ser her duyan kontrol û zêrevaniyeke baş nahê kirin û ewa bi xwe ciyê tirsê ye.

Li gor gotina nojdarekê, piraniya navendên ne qanûnî ên *destjêberdana îtiyadê,* wan cure dermanan bikar tînin ku ji madeyên sirker ên xaw û kîmyayî pêk tên. Dermanên han ne tenê nabe sebebê rizgarbûn ji mutadbûnê (bikaranîna madeyên bêhişker), belkî heta astê tûşbûnê zêdetir dike û di dawiyê de dibe sebebê mirina wî/ê.

Herwisa li gor rapora nûçegihaniya "ILNA"yê, Dr. Homen Narincî, Cîgirê Navenda Daryûş, di civîneke lêkolînî û guhertina bîr û rayan a lêkolînvan û karnasan li ser mijara fêde û qazanca bikaranîna madeyên sirker de, tevî îşarekirin bi encamên herî dawî ên di biyava îtiyadê a di navbera 6 hezar kes ji kesên bikarînerê madeyên bêhişker de got: "Li gor encama vê lêkolînê, %17 ji bikarînerên madeyên bêhişker, 20 heya 24 salî ne, %23 di navbera 25 heya 29 saliyê de ne û pareke zaf ji wan di navbera 20



heya 34 saliyê de ne."

Wî zêde kir û got: "Navinca temenê tev bikarînerên madeyên sirker, 32 sal e û di salên borî de, hejmara kesên tûşbûyî bi madeyên sirker di nava ciwanan de zêde bûye, bi awayekê ku temenê îtiyadê nêzîk bi yek sal û nîvan jêrde hatiye."

Wî tevî îşarekirin bi vê çendê ku li gor serhejmariyên heyîn, nêzîk bi %7 mutadan (bikarînerên madeyên bêhişker) jin in, bibîr anî û got: "Rengê hindê dide ku hejmara mutadên jin ji vê hejmarê zêdetir be û hindek pirs û astêngên heyî di civakê de ku dibe sebebê pêşîgirtin ji seredana jinan bo navendên dermanî, çareserkirina pirsa îtiyadê di navbera van mutadan de tevî dijwariyên zaf berbirû kiriye."

# Rojê 54 Jinên Îranî Bona Îstîsmara Zayendî Li Welatê Pakistanê Tên Firotin

Li gor rapora Wezareta Karê Dereve ya Amerîkayê derheq qaçaxa jin û zarokan di cîhanê de, welatê Îranê di pileya sêyem (pileya herî dawî di warê xebat li dijî qaçaxa mirovan de) cî girtiye zû jinên Îranê di hundirê welat de bi armanca fahêşe û karê bêexlaqiyê û mêrkirina neçarî bi merema dana qeran tên qaçaxkirin.

Herwiha di raporê de hatiye " Îran weke çavkaniyekê ye bona hatin û çûn û akincîbûna wan jinên ku bi armanca alvêra zayendî û xulametiya ne jidil hatine qaçaxkirin.

Pêka rapora han zarok jî di hundirê Îranê û Efxanistanê bona pêkanîna jiyana havbeş a bi zorî, îstîsmara zayendî û koletiya bi zorê weke xwezok û karkeran ber bi Îranê tên qaçaxkirin. Herwiha jinên Îranê bona îstîmara regezî ber bi welatên Pakistan, Turkiye, Qeter, Kuweyt, Mîrîtiyên Erebî, Firansa, Almanya û Îngilîstanê tên qaçaxkirin. Bi terzekê ku rojê 54 jinên Îranî li temenên 16 heya 25 saliyê bona îstîsmara regezî li welatê Pakistanê tên firotin.

Li dirêjahiya rapora han de hatiye ku dewleta Îranê bi awayekê hewce tevî îstandardên pêşîgirtin ji qaçaxê hevkariyê nake û di vê derheqê de xwe nawestîne. Rapora navhatî vê çendê eşkere dike ku rejîma Îranê goriyên qaçaxa mirovan bi terzeke hovane û bi zîndanîkirin û daliqandin û ... ceza dike.

Di dawiya raporê de daxwaz ji dewleta Îranê hatiye kirin ku bona pêşîgirtin ji cezadana goriyên qaçaxê gavên hewce bavêje û gelaleyekê darêje ku kesên karê qaçaxê dikin, bên girtin û cezadan û pêşî ji qaçaxê were girtin.

## Sebeba Sereke Ya %70 ji Kirîz Û Pirsgirêkan, Bêkarî Ye



Îro rojê Bêkarî pirsa herî mezin ya civaka me ye. Bi lênihêrînek kûr û girseyî mirov jî re eyan dibe ku pirsa zewicînê ji pirsa bêkariyê mezintir e. Bêkarî yek ji sebebên herî sereke ye bona pêkhatina pirsgirêk, kirîz û fisadên civakî, ku bi awayekî herî berfireh û xurt di civakê de belav bûye.

Bêkarî yek ji wan kirîzên herî dilêş e ku civaka me ya ciwan tevî xwe ber birûkiriye. Xwe rakêşana ciwanan bo aliyê dewletê û nebûna pêwîstiyên hewce bo danîna sermayeyên rêxistinî bona pêkanîna kar, yek ji wan pirsan e ku di darêtina budceyan de gellek bi kêmî tê liberçavgirtin.

Hebû na bêkariyê, encama wan siyasetên şas û nedirust e ku îro rojê gişt birêveber û siyasetvan, bi berfirehî bas lê dikin. Li ser vê çendê ku sedemên cur bi cur bûne sebebê pêkhatina kirîza han, gotinek tune ye!

Di sala 2006'an de weşana lêkolînên aborî a Rojhilata Navîn (MÎS), di raporeke kemilî a şiroveyî de li ser kirîza bêkariyê di Îranê de nivîsand: "Kirîza bêkariyê di Îranê de, %40 xelkê vî welatî anku 28 milyon kes bi xwe ve girtiye û gişt nifûsa civakê bi awayekî rêjeyî tûşî xizanî û feqra aborî kiriye.

Her îsal dewlata Îranê bi xwe ragehand ku %12 xelkê wî welatî bêkar in. Lê serhejmariya han ji aliyê çend şarezayan, nerast hatiye zanîn.

Cîgirê pêwendiyên kar ya Wezareta Kar û Barên Civakî yê Îranê di vê derheqê de got: "Yek alîbûna aboriya welat dibe sebebê xurttirbûna bêkariyê di welat de û niha kirîza bêkariyê jî yê bûye sereketirîn pirsa bajarên mezin".

Astê bêkariyê di parêzgehên Îranê de bi hev re ferq hene û astê herî zêde a kirîza bêkariyê di parêzgehên li ser sînoran de ku piraniya wan di warê olî ve Misilmanên Sunî ne û ji parêzgehên belengaz ên Îranê ne, ji bajarên dinê ye Îranê jordetir e. Her 4 parêzgehên Kurdan li Îranê, di vê hêla xizanî û bêkariyê de cih girtine.

# Mafên Hevwelatîbûnê

**Mihemed Mîlanî**
**W: Hemîd Muxtarî**

Mafên mirovan, bi zindî ji dayîkbûna her miroveke dest pê dike û bi mirina wî/wê bi dawî têbe. Her mirovek ku ji dayîk dibe û tê ser rûyê dinê, xwediyê mafên **medenî**, **siyasî** û **civakî** ye. Helbet mafên han bi awayekî rêzokî bi hevre girêdayî ne û bêy hebûna ewlehî û tenahiyê pêk nahên.

Ev mafên han pêk tên ji:

**A) Mafên Medenî**

Mafên medenî(sivîl) bi mafên takekesî di yasayê de tê gotin. Ev maf hindek îmtiyazan bi xwe ve digire ku îro rojê ji aliyê piraniya me ve hatine pejirandin, lê bidestveanîna wan demeke dirêj dixwaze. Mafên sivîl yanî eva ku her kesek bikare bi dilê xwe di her ciyekê ku hilbibijêre bijî, di warê ol û bîr û raderbirînê de azad û serbest be, mafê xwedîtiya taybetî hebe û xwediyê mafên wekhev li hember yasayê de be. Lê mixabin heya niha ev mafê rewa di Îranê de nehatiye birêvebirin. Heta di hindek cihan de yan baştir e em bibêjin di zaf herêmên Îranê de, bi terzeke nemirovane û dûr ji yasayên navneteweyî tê binpêkirin, bi xasmanî derheq mafê jinan, rejîma Îranê tu rêzekê jê re nagire û herçend ku pir caran jî ji aliyê saziyên navneteweyî û mafên mirovan ve derheq vê çendê hatiye mehkûmkirin û hişyarî jêre hatiye dan, lê ev yeka ne tenê nebûye sebebê li berçavgirtina mafên mirovan ji aliyê rejîma Îranê ve, belku kiryarên han bi awayekî berfirehtir û bi eşkere û nepenî ji aliyê karbidestên rejîmê ve tê birêvebirin.

**B) Mafên Siyasî**

Cura duyemîn a mafên hevwelatîbûnê, mafên siyasî ne, bi xasmanî mafê beşdarîkirin di hilbijartin û xwe berendamkirin di hilbijartinan de. Mafên han jî bi rihetî bidestve nehatine, jin neçar mane mideheke zaf bendewar bimînin û ev mafe heya astekê di encama xebata bizavên jinan û heya asteke demdirêj jî di encama beşdariya jinan di aboriya fermî li



dema şerê Îran û Îraqê û herwiha mehkûmbûna rejîma Îranê derheq mijara han li hember qewl û sozên xwe ji bo ew sazî û rêxistinên navneteweyî misoger bûne.

**C) Mafên Civakî**

Cura sêyemîn ya mafên hevwelatîbûnê, mafên civakî ne. Mafên han tê wateya rihetiya aborî û ewlehiya civakî bo tev xelkê di civakê de. Mafên civakî yanî hebûna îmkanatên saxlemî, dabînkirina hewcedariyên jiyanê li dema bêkariyê û diyarîkirina astê heqdestê. Bi gotineke din, mafên civakî pêwendî bi xizmetkirinên rihetiyê di civakê de heye. Herçiqas ku di pir herêmên Îranê de berî dabînbûna mafên yasayî û civakî, îmkanatên cur bi cur ên rihetiyê hatibûne dabînkirin, lê li gor mafên civakî û ewlehiya jinan di civakê de, siyasetên paremayî û qirêj tên domkirin û mafên wan bi eşkere ketine tirsê. Mafên civakî, mafên herî dawî bûn ku pêk hatin. Sedema vê çendê eva ye ku gihîştina bi mafên medenî û bi taybet mafên siyasî di rastî de bingeha xebat bona bidestveanîna mafên civakî ye ku tê wateya heysiyeta zatî û ewlehiya canî. Gelo bidestveanîna vê yekê di çarçoveya desthilatdariya rejîma niha ya Îranê de tê dîtin?!

Divêt were gotin ku di rastî de ev yeka di rejîma Îslamî a Îranê de tenê weke dirûşmekê ye li ser rûpelên yasaya bingehîn a rejîmê û bi awayekî piratîkî qet nehatiye û nahê cîbicîkirin. Rejîma Îranê demeke dirêj e ku biryara mehkûmkirinê li ser jinan daye sepandin û biryarên weke zîndanê bi armanca perwerdekirina jinan û guhertina riftara wan derheq xwestekên Melayan der dixin yan bi sûça neparastina li xwekirinê li gor ola Îslamê tên mehkûmkirin. Li vir pirsek tê holê, Erê gelo çawaniya lixwekirinê yan girêdana desmalan e ku ewlehî û dîspilîn û yasayê dixe tirsê û divêt weke sûça resmî were nasandin û sûçbar bi vî terzî bên cezakirin, yan terorên di nava şeqaman ên çend salên borî di bajarê Tehranê de ji aliyê “Besîc” û “Pasdar”an?!

Yan belavkirina goştê pîs yê heywanan di nava xelkê de ji aliyê rejîmê ku bûye sebebê peydabûna nexweşiyên bêçareserî di civakê de, yan cezadana xwendekaran di 18.04.1378’an, de tenê bi sûça dana dirûşmên gel serdestiyê û avêtina kevçikan ji qada sêyem a xewgehan, yan belavkirina madeyên sirker di navendên temînî û hînkirinê û tûşkirina ciwanan bi madeyên bêhişker?! Herçend ku rejîma Îranê îdeaya vê çendê dike ku li gor sozên xwe li hember saziya navneteweyî û rêxistinên din yên mafên navneteweyî li dijî girûp û bandên qaçaxa madeyên sirker xebatê dike,lê di rastî de rejîma Îranê yekemîn sebebkarê xurtbûn û berfirehbûna madeyên sirker di nava ciwanan de ye û bi destê xwe jiyana ciwanan ji wan distîne,kîjan divêt werin mahkûmkirin û cezadan?!

Erê gelo eva ne rast e ku ne wekheviya jin û mêran di civakê de gihîştiye qasê xwe û rejîm qet nikare wan riftarên xwe ên nemirovane li dor jinan veşêre û vê siyasetê bide sekinandin. Rejîma Îranê get îznê nade ku jin werin nav meydana siyasatê de û heke îzna dengdanê di hilbijartinan de dayiye wan, ne ji ber vê çendê ye ku bawerî bi mafê jinan bona dengdanê hebe, belku bona jordebirina astê dengan û mifahwergirtina xirab ji dengdana jinan li hember raya giştî a cîhanê ye. Di dawiyê de divêt bibêjim ku bidestveanîna mafên hevwelatîbûnê qet di çarçoveya rejîma Komara Îslamî a Îranê de nahên cîbicîkirin.

## 2 Jinên Kurd Xwe Kuştin

***Keçeke 25 salî li Urmiyê xwe kuşt***

Nûçegihanên Rêxistina Mafên Mirovan ya Kurdistanê (RMMK)’ê, dan zanîn ku roja 29.03.1386 (19.06.2007)’an, keçeke ciwan ya 25 salî bi navê **Perwîn**, keça Mela Rehîm, akinciyê gundekî derdora Urmiyê, bi guleya tivingê dawî bi jiyana xwe anî. Keça navhatî, di malbateke olî de dijiya û tê gotin ku bi sedema nerazîbûna malbata wê ji bo zewicîna a bi xortekî re, xwe kuştiye.

***Jineke 22 salî li Kamyaranê xwe şewitand***

Herwiha nûçegihanên “RMMK”ê eşkere kirin ku jineke 22 salî ya bi navê **Firişte. Q**, ya gundê Xanimava a derdora bajarê Kamyaranê xwe şewitand. Tê gotin ku wê ji ber pirsgirêkên malbatî mideheke li mala bavê xwe dijiya ku piştî vegeriyan bo mala mêrê xwe, roja 18.06.2007’an, agir berda laşê xwe û ji ber xurtiya birînan, jiyana xwe ji dest da. Firiştê, kurekî 4 salî jî hebûye.

Pirsgirêkên malbatî heya niha yê bûne sedema xwekuştina gellek keç û jinên Kurd.

## Cendekê Jineke Kuştî Li Seqizê Hate Peydakirin

Çend rojan berî niha li taxeke bajarê Seqizê, termê jineke 25 salî hate peydakirin. Tê gotin ku nîşaneyên lêdanê û fetisandinê li ser cendekê wê hatine dîtin û renge ew jine hatibe kuştin.

# ZANÎN Û PERWERDEHÎ

ADAR JIYAN
adarjiyan@mynet.com



Hewldana mirovên zana û perwerdekar a pêzanîn, derdornasîn û xwenaskirinên civakî ji dîroka mirovahiyê de dest pê kiriye û heta îro hatiye. Ji wê rojê û vir de ye ku mirovên pejnkar û rûmetdar li ser vê yekê radiweestin, eleqedar dibin û serê xwe diêşînin. Ev mirovên zehmetkêş û ked-dar bi vê jî nehatine ser; ketine nav liv û lêgerînên bibergeh û dorfireh.

Hîkariya navbera mirov û xwezayê û her wiha pêwendiya navbera heyîn û heyberên dinê, ji hêla mirovahiyê ve wekî qada pisporiyeke serbixwe tê zanîn. Belê ya girîngtir ew e ku mirov vê pêwendiyê bi awayekî erênî bi kar bîne û jê sûd û fêdeyê wergire. Ev jî bêşik bi riya zanîn û perwerdehiyê bi dest dikeve.

Zanîn û perwerdehî du têgihên cihê, belê her wiha du têgihên têkildar ên bivênevê ne jî. Perwerdehî bi saya zanînê pêşve diçe; belê zanîn jî bi perwerdehiyê re digihîje encam û armanca xwe. Hewm û pevcivînên zanînê, xwe di qada perwerdehiyê de didin der. Heke perwerdehî tune be, hîndekariya zanînê bi tena serê xwe bi kêrî tiştekî nayê. Hemû dane û komasiyên zanînê bi saya perwerdehiyê hatine/têne parastin û parvekirin.

Perwerdehî, bi zanînê pêk tê. Û zanîn jî dîsa bi saya perwerdehiyê zanîneke din hildiberîne. Perwerdehî, zanînê pêşve dibe, têkûz dike û wê li ser hîmê rastî û duristiyê diedilîne. Zanîn û zanyariya ku bi lêgerîn û dahûrandinên zanistî bi dest dikeve, bandoreke pir mezin li ser teknolojî û alavên teknolojiyê dihêle. Lewre rasteqîniyên zanistî, her wiha mîrateyên hevpar ên tevê mirovahiyê bi xwe re tînîn. Pêşveçûn an jî standardizasyona jiyanê, dibe sedema pêşveçûna lêgerîn û lêpirsînên teknolojiyê. Lêgerîn û bikaranîna alavên teknolojiyê jî şaxên zanîn zanyariyên demê bi re tîne.

Perwerdehî, dem û domana ku di pêvajoya kemilîn û geşedaniya mirovbûnê de pêk tê ye.
Her çendî ku wekî têgiheke nû bête zanîn jî, bi hezaran sal e ku ev yek li gorî merc û derfetên demê pêk hatiye.

Çi ye mirovbûn?

Mirovbûn, ew taybetiya ku mirov ji heyîn û heyberên din vediqetîne ye. Belê her mirov nikare xwe bigihîne asta mirovbûnê. Mirovbûn, taybetiyên mîna şarezahî, bêhnpakî, dilpakî û serbilindahiyê bi xwe re tîne. Her mirov, hişmend û aqildar e. Belê her mirov ne zana û şareza ye. Şarezabûn bi zanîn û perwerdehiyê bidest dikeve. Mirov ne bi kodên xwe yên genetîk û nejî bi kevneşopiyên xwe yên nîjadî pêşve diçe. Ew, bi saya hewldanên zanistî, çandî, zana û zaneyane têkûz dibe û pêşve diçe.

Perwredehî, tenê ne di bin sîwana dibistanê de; her wiha ji malê bigiriin heta derûdor ji derûdor bigirin heta qada listik û hesîne û hengameyê... hemû der wekî qadên perewerdehiyê têne zanîn. Belê hîmê şardebûna mirov di malbatê de tê danîn. Ango perwerdehiya mirov a destpêkê ji malbatê belê nemaze ji dayîkê dest pê dike. Her mirov di zarokatiya xwe de pêşî li ber destê diya xwe mezin dibe. Sinc, tevger û livbaziyên diya xwe bi awayekî baldar dişopîne û jê bandor werdigire. Heke dayîk bi awayekî erênî hatibe şardekirin û perwerdekirin, dê şardebûn û perwerdekirina zarok bi awayekî erênî; belê heke dayîk ji perwerdehiyeke zaneyane bêpar mabe, wê çaxê dê kesayetiya zarok bi awayekî neyinî teşe bigire.

Pêwendî, ragihandin û parvekirinên jiyanê yên rojane hemû li ser hîmê pewrewerdehiyê hatine/têne avakirin. Zanyariya rastîn, bi perwerdehiyê durist û têkûz dibe. Der barê vê yekê de Konfîçyûs wiha dibêje:

"Hêkeke te heye û hêkeke min.
Min hêka xwe da te û te jî hêka xwe da min
Hêkeke te çêbû û ya min jî bû hêkek.
Dîsa bi te re hêkek heye û min re jî yek.
(ango tu guhertin pêk nehat)
Belê;
Zanîneke te heye û zanîneke min.
Min zanîna xwe da te û te jî zanîna xwe da min.
Du zanînên te çêbûn û du zanîn min."

Îro ro, tiştê ku hukmê xwe li ser zanîn û perwerdehiya mirov dike, yek jê jî jiyana bajarvaniyê ye. Jiyana bajarvaniyê bi awayekî dorhêl bandorê li ser tevger, bizav û kesayetiya mirov dihêle. Nemaze jî mirovên zarok û xeşîm. Mirov di zarokatiya xwe de li kijan derû dorê û di kjîan civakê de bijî, dê li gorî merc û derfetên wê derûdorê û jiyana wê civakê dirb û dirûv bigire. Mirov digel mezinbûn û stewîna xwe ya asayî, ji hêla çand û civakîbûnê de jî diguhere û pêşve diçe.

Perwerdehî, ligel ku di her dem û domanên jiyanê de bandorê li ser kesayetiya mirov dihêle jî, belê bandora herî domdar û mayînde bandora ku li ser jiyana mirov a zarokatiyê dike ye. Lewre kartêkeriya herî bibandor, kartêkeriya bajarvaniyê ya sikak, kolan û yarîgehên bajêr ên ku bi hem û alav û amrazên xwe, jiyana zarok dorpêç dike ye.

Kes dibe, civak dibe, heke baş hatibin perwerdekirin sûdewar û erênî, belê baş nehatibin perwerdekirin xisar û neyinî ne. Em ê gotara xwe, bi gotina ku têkildarî babeta me, ya Lord Brouham bi dawî bikin:

"Arastekirina kesên (mirov an jî civakên) perwerdekirî hêsan, belê xirandina wan zehmet e; birêvebirina wan hêsan, belê dîlkirin û kolekirina wan bêmikûn e."

## Kaniya Helbestan



Serbest Urmiye
serbesturmiye@hotmail.com

### Îşev

Îşev
Dê bibare baran
Û
Ne rêwîng im ez
Karwanê dil
Bêtirsa rêgir
Derbas dibe ji av û agir
Lê
Di benda dil de mame ez
Refên karwan
Dê
Bişkênin îşev
Sînorên dil û
Di benda tayek zulfên
Por sorek dilxapîn de
Biqeyd û zincîr im ez
De birêkeve, bişkêne
Karwan
Di bin reş perdeyên
Şevên evînkuj de
Bidengê bilûra pêşeng û çavşîn
Sînorên tarîgirtî yên dil
Da
Reha û serbest bim
Ji qeyda dil û
Tirsa
Kore kundên şevperest

### Ez ...

Ji ber
Pêlên behra reşgirtî ya dil
Hatin û xendiqîn
Hezar evîn, min di sîng de
Di ...
Lehiya reşava rûbarê dil de
Çûn ji min
Tev dildar û dilber
Tevgerên çerxa gerdûn
Ji bîriya rojê birin
Dilên bêdildar û
Esman, veşartim ez
Ta ku mest û medhûş
Bi tenê
Bêdildar û deng
Di kambaxa kuncê meyxanê de
Bûm ....
Hevsêyê saqiyê meyfiroş
Ê ....
Bêdil û xeber ji dil
Carna
Bi camek ava tirî
Ji bîr dikim, ez jî xwe

# Çend Gotin Derheq Muzîka Kurdî(Kurmancî) Li Kurdistana Îranê

**Erselan Codetiyan**

Heke em bixwazin derheq muzîkê bipeyivin, divêt em bibêjin ku di muzîka her neteweyekê de fikir, raman, hest, bawerî, şahî û xemgîniya wî gelî veşartî ye. Dibêjin li cihê ku ziman disekine, muzîk dest bi peyivînê dike. Di dirêjahiya dîrokê de, ji ber ku hertim mafê rewa û berheq ê gelê Kurd jê hatiye standin û tu car welatek serbixwe nebûye, lewra derfeta xwendin û nivîsîn bi zimanê Kurdî jî nebûye. Lê tiştê ku zimanê Kurdî heya roja îro aniye, dengbêjiya Kurdî bûye.

Mixabin beşeke mezin ji muzîka Kurdî ji hêla dewletên dagirker ve hatiye dizîn û ji xwe re kirine mal.

Li Rojhilatê Kurdistanê, deverên kurmancîaxiv jî weke hemû deverên din ên Rojhilatê Kurdistanê, zext û zora dewleta desthilatdar bi ser de hakim bûye, kultur û kesên ku di xizmeta berjewendiyên wan de bibin, li gor wan normal in, lê kesê/a ku bixwaze ji kultura xwe re xwedî derkeve, “Mufsid fil erz” (fasid û gendelên ser rûyê erdê) tên hesibandin dikevin ber zext û givaşan û heqê wî/ê zîndan û mirine e.

Li nêrîna wan de me mafê axavtin bi zimanê xwe heye, lê axavtin ku li gor berjewendiyên wan be.

Xaleke giring di wê derheqê de eva ye ku heke muzîka Kurdî di parên din ên Kurdistanê de qedexe be, di Kurdistana me de ducar qedexe ye, sedema vê çendê jî sîstema Komara Îslamî ya Îranê ye ku bi siyaseta îslamîbûna xwe li dijî hemû kultur û çand û dilxweşiya gelê Kurd, neteweyên din yên Îranê û heta gelê Fars jî disekine.

Lê ev dijwariya bi xwe jî çend qonax in. Qonaxa yekem eva ye ku di destpêka Şoreşa gelên Îranê de bi yekcarî biryara herambûn û qedexebûna muzîkê hate dan. Qonaxa duyem jî eva ye ku piştî heyamekê sînahiyek pir kêm ji bo hezkerên muzîkê tê xuyakirin ku bi tenê li ser Xwedê û Pêxember û Îmaman stran dikare were gotin, ku jêre dibêjin stranbêjiya olî.

Qonaxa sêyem eva ye ku starnbêjiya olî jî li gor hemû fîlter û sansorên xwe ji bo neteweyên Îranê, zehmet, dijwarî û astengên xwe hene, yanî divêt zimanê te yê sereke Farsî be. Bo mînak, di CD yan kasêtekê de jî, divêt %80 zimanê Farsî be(helbet kasetek ku orgînal be).

Mixabin di nava gelên Îranê de, gelê Kurd di qonaxa yekem de dijî û di nava qonaxa yekem de jî, Kurdên Kurmanc pitir bê maf mane.

Heke em ji muzîka Kurmancî li Kurdistana Turkiyê binêrin, em dibînin ku muzîka Kurdî û Turkî pir nêzîkî hev e. Yan di Îranê de, muzîka Soranî û Farsî nêzî hev e, lêbelê rengê muzîka Kurmancî û amûr û alavên wê tevî muzîka Farsî ferq û cudahiyek yekcar zaf heye, ev yeka ne tiştek ecêb e, ji ber ku em neteweyek cuda ne û tevî çand û kulturek cuda. Lê mixabin ev yeka jî bi xwe pirsgirêkek e li ser rêya muzîka Kurmancî.



Çaxê ku em têde dijîn, dema teknîk û înternetê ye û însan bi hêsanî dikare hemû çand û zimanan li nêzîk ve bişopîne. Bo mînak, televîzyon û setelayt, ev yek dikare bandora kulturan li ser hevdu pêk bîne. Lê ne bi vê wateyê ku kulturk ji holê rabe. Mixabin em yê ketine bin desthilata sîstemekê ku xalên ku di kultura me de nêzîkî kultura wan bin, ji bo xwe dikin mal û yên ku ji wan dûr bin divêt ji holê rabin, lêbelê li gor dema îro, gerek em hişyar bin, muzîka me jî xalek e ji hemû deb û edetên çanda me, stran û muzîk derbasî qonaxek nû bûne, medya Kurdî îro ji hemû deman baştir û pêşkevtîtir bûye û dê baştir jî bibe televîzyona “TISHK” ku berhemê ked û xuhdana sala û bi hezaran şehîdan e, îro hêviyek ji bo hemû Kurdan û tîrêjek ji bo derbirîna bîr û bawerî û hestên azadîxwazî ku bi salan di dilê mirovên dilsoj û qehreman de mabû û pencereyek e ji bo ku ji xwe û muzîka xwe bi awayekî zanistî, xwedî derkevin, bi taybet muzîkvan û stranbêjên me yên genc.

Bi hêviya roja serkevtinê.

# Daxuyaniya Navenda Nivîskarên Kurdistana Îranê, Bi Hinceta Zextên Komara Îslamî Ya Îranê Bo Ser Çalakên Kurd

*Di daxuyaniyekê de, Navenda Nivîskarên Kurdistana Îranê hevdem tevî mehkûmkirina riftara berpirs û karbidestên rejîma Komara Îslamî ya Îranê tevî Kurdên çalak û xwedî bîr û rayên cuda, ji hemû tekoşer û navendên mirovhez dixwaze ku li hember zext, givaş û êrîşên rejîmê li dijî ronakbîran, bisekinin.*

*Deqa daxuyaniya han bi vî awayî ye:*

Komeleyên azadîxwaz ên Kurdistanê!

Ronakbîr û tekoşerên nava tevgera ronakbîrî ya Kurdistanê!

Navend û rêxistinên mirovhez

Her wek hûn agehdar in, zor û zextên hêzên dijî azadiyê yên Komara Îslamî ya Îranê li ser ronakbîr, rojnamevan, çalakên çandî û hunerî û endamên Navenda Nivîskarên Kurdistanê, heta diçe zêde û zêdetir dibe û her di wan 3 heftiyên borî de, çendîn kes ji wan cudabîrên han ji nû ve ketine ber lêpirsîn û hikmên domdirêj û nemirovane bi ser wan de hatiye sepandin




ku weke mînak em dikarin qala **Aso Salih**, **Seîd Saidî**, **Mensûr Teyfûrî**, **Îclal Qewamî** û **Ednan Hesenpûr** ku berbirûyê xeterekî mezin hatine.

Ewa di demekê de ye ku berê jî rojnamevanên heftînameya daxistî ya “Peyam e Merdum” yên bi navên **Îrec Ebadî**, **Cemşîd Wezîrî** û **Kawe Husênpenahî** ji dadgehên Komara dijî azadiyê re hatine gazîkirin. Buxtanên bixeter ên ji hin kes ji wan birêzane hatine kirin, ji me re didin kifşê ku karbidestên vê rejîmê hez dikin ku bi hemû hêz û şiyana xwe ber bi ji holê rakirin û jinavbirina cudabîrên Kurd biçin. Ji ber vê çendê ye jî ku heke li hember wan pîlanên rejîmê de bêdengî were parastin, dê tirajîdî û bûyerên mezin û dilêşîn werin afirandin.

Em weke Navenda Nivîskarên Kurdistana Îranê hevdem tevî mehkûmkirina wan hewlên dijî mirov yên berpirsên rejîmê, daxwazê ji hemû aliyan dikin ku bi eşkerekirina kiryarên metirsîdar ên dijminên azadiyê û girtina helwesteke qahîm û tund, zextê li ser rejîmê bikin da ku pêşiya wan bûyerên metirsîdar yên ku li dijî ronakbîr û cudabîrên Kurd tên kirinê, were girtin.

**Navenda Nivîskarên Kurd**
**24.06.2007**

# Çiqas Li Me Tê Mirin!

**Besam Mistefa**

Li paş asoyên şîn dinihêrim, çendîn kurt û dirêje ev jîna me.

Niha, bêriya ken û girî dikim. Du gav in, tenê du gav in û jiyan destpê dike. Niha, bêriya wî zarokê ku di bin siya dîwarê mala me de, di havîna germa şewatkar de mêraniya xwe ezmûn dikir, dikim.

Li hewşê, dara tûyan hebû. Di bin darê de, kalikê min yê rûboz û xweşik, bi çerxê xwe yê pirteqalî û dirêj çixare ji çixarê vêdixist. Di her hilmekê de, zozanên welatê li paş şîn asoyan raketî, şîntir dibû. Bêrîvanên çavkilkirî di nav dûyê wî de, şîn dihatin.

Em zarok bûn dema ku ew mir. Dotmama min Menîce(kalikê min jêre digot Meno) pora serê xwe anî xwarê. Apê Xelîl ku tucarî nediçû şîniyan, di nîvê odê de-ciyê ku kalikê min lê hatibû dirêjkirin-li qelevîzka rûniştibû û digiriya. Di nav giriyê xwe de digot: Ew henûn bû! Em zarok bûn, me nizanibû mirin çi ye û çima merivên me wisa digirîn. Giriyê me nedihat. Yekî em agahdar kirin û got: Bigirîn! Kalikê we mir!

Beriya kalikê me bimire, bavê wî jî miribû û beriya wî jî kalikê wî. Belê, sîstêma herî rêkûpêk û dirust mirin bû. Mirina ku pişî jiyanê cî digirt, lê ne di nava wê, anjî beriya wê!!

Ji xwere biramin: kalikê min heta mirina xwe jî bêhêvî nebû. Weke gelekên dîtir, ji ber sitema Tirkan piştî şoreşa Şêx Seîd reviyabû hatibû binxetê û li wira bicî bûbû. Baş tê bîra min, dema ew di nava odê de dimeşiya, çixareya wî jî pêre, gavên xwe dijmartin: Gavek na dido na sisê...ta dighîşte dehan. Disekinî, lingê xwe yê rastê heta jê dihat li erdê dixist û digot: Ha li vir kevirek heye, di bin de zêr veşartiye! Bost bi bost, axa welat di bîra wî de bû, qet bê hêvî nedibû. Venegeriya welêt, lê bêhêvî nebû.

Bêhêvîbûn mirin e.

Mirin ne yek e, renge reng e: Yên ku mirî tên dunyayê, yên ku di jiyanê de dimirin, û yên ku piştî jiyanê dimirin! Mirina here biêş û dijwar mirina dil e....mirina azwer, hêvî û baweriyê ye..dûrketina ji heriya pêşîn, têdaçûna di nav hizr û raman û teore û bîrdoziyên cuda-cuda de ye.

Mirin ne ewe mirovek ji xwe re heta hetayê raze! Mirin, jibîrkirina gewherê eslî û pêşin yê mirov e...veşartina hest û nestên mirovî yên xurû û sade ye: Ev çi cil û berg û derman û bihn û derew û fen û xap û hîlebazî ne? Ev çi bajar û hasin û dîwarên bilind û kolan û avahî û ronahî û çemênto ye? Ev çi reng mirin e!? Çi mirî ne li van kolanan digerin?!

Du gav in, tenê du gav û jiyan destpê dike.

Lêbelê, mirin çiqas li me tê! Êdî em hişk dibin ji heriya xwe dûr dikevin..mirin e eva ku em dijîn....

Ka were kalo em çixareyekê bikşînin!

# 27'emîn Salvegera Destbikarbûna Radyo Dengê Kurdistana Îranê Pîroz Be

**Rehîm Reşîdî W: Azad Kurdî**

Li 27'ê meha Cozerdan (17'ê Hezîran)a hemû salekê, xelkê mafxwaz yê Kurdistanê bi giştî û nemaze endam û alîgirên PDK Îranê, bîranîna avakirina Dengê Kurdistana Îranê bi hêja û qedirgiranî ve pîroz dikin. Roja 27'ê Cozerdana sala 1359'ê Rojî(17.06.1980), di demekê de Radyo Dengê Kurdistana Îranê bi peyama rêberê leheng û navdar yê kurd, **Dr. Ebdulrehman Qasimlo** dest bi xebatê kir ku têkoşîna tim partî û rêxistinên siyasî ên demokrat û pêşverûxwaz ên Kurdistanê jî bo peydakirina rêya çareseriya aştîxwazane bona çareserkirina doza siyasî ya gelê Kurd li Kurdistana Rojhilat, bi sedema siyaseta şerxwazî û fitne afirandina rayedarên taze bi desthilat gihîştî yên Welayeta Feqîh tevî têkçûnê berbirû bibû.

Xomeynî bi eşkere li dijî xelkê azadîxwaz yê Kurd fermana cîhadê dabû, fermanek ku rewş û delîveya kuştin û qirkirina berfireh ya xelkê bêguneh û sivîl yê Kurdistanê ji sipahiyên azadîkuj re bi tevahî pêk anîbû. Di rastî de, serbazên eniya nezanî û kevneperestiyê bi pêşgirtina siyaseta kuştina xelkê sivîl, wêrankirina gundan û bomebarankirina berfireh ya bajarên Kurdistanê, her zû selimandin ku ji bo gelên Îranê ên bêpar ji azadî û mafê berheq, tu mizgînî û xebereke xweş ninin. Siyasetek ku serbarê bê encambûnê, mixabin heya niha jî her didome.

Di rewşeke wiha de, Radyo Dengê Kurdistana Îranê wekî pêwîstiyekî dîrokî ji bo eşkerekirina qelafeta bixwîn û birîndar ya Kurdistanê û xebat û berxwedana rewa û berheq ya xortên gelê Kurd ji man û hebûna xwe û ax û xelkê xwe, ji aliyekî din ve jî bo kifşkirin û şermezarkirina naveroka şerxwazî û dijminkariya karbidestên desthilatdar ên Îslamî li dijî xelkê Kurdistanê, bi îmkaneke pir kêm, lê bi stûgirtina resalet û erkek pîroz û dîrokî pê danî qada xebat û têkoşîna ragihandina şoreşgerane ya Kurdistanê.

Radyo Dengê Kurdistana Îranê di wê rewşa dijwar de, bi hildana sela û banga azadîxwazî û belavkirina nûçeyên derbarê Kurd û Kurdistanê, derfeteke zêrîn û girîng berbi rûyê azadîxwazên welatê me vekir.

Di rastî de, Radyo Dengê Kurdistana Îranê, herçiqas di warê hêza kar, îmkanatên malî(diravî) û teknîkî, bi awayekî xizan û destkurt têkoşîna xwe ya serbilindane dest pê kir, lê ji ber ku hêzek neteweyî û demokrasîxwaz ya berpirsiyar di pişt de rawestabû û dirûşmên wê partiyê jî rengvedana rastîn ya xwestekên mafxwazane yên welatparêzên welat bû, her pir zû bala civatên milyonîn ên xelkê Kurdistan bo aliyê xwe rakişand. Bi sedema rastbêjî û tekoşîna azadîxwazane ya wê radyoyê, hevdem ji ber rêveberî û xemxoriya **Dr. Sadiq Şerefkendî** ku gellek salan berpirsiyarê radyoyê bûye, bi tevahî bûye cihê bawerî û hitbara hemû xelkê welatê me.

Dengê dilêr yê Kurdistana Îranê, di heyama temenê tejî ji serbilindî yê xebata xwe de pir evraz û nişîv bezandin, dijwarî, kosp û asteng hatine ser rêya wê, lê herdem bi sedema hişyariya siyasetrêjên wê û fidakarî û hest bi berpirsiyarîkirina xebatkarên vê radyoyê, di rewşên herî dijwar û tund de, heya di bin êrîşa bombe û katyûşayan de jî bo demekê ji xebatê ne sekiniye.

Aşkera ye ku ji destpêka karê vê radyoyê heta niha, rayedarên rejîma Îranê ji bo kîpkirin, fetisandin û bêdengkirina dengê rastbêj û cihê hitbara xelkê Kurdistanê, cehd û hewla girtin û kîpkirina vî dengê zelal dane û didin. Tenê eva bes e ku em bizanibin, di heyamê tekoşana xwe ya bêrawestiyan de, bêtirî 20 caran, bi naçarî cihê Radyo Dengê Kurdistana Îranê hatiye guherîn. Lê wekî em dizanin, tenê 2 caran ku ew jî sedemek derekî hebûye û li vir ne hewceye ku em qala wan bikin, dengê wê hatiye kîpkirin.

Ji tu kesê jî veşartî nine ku Dengê Kurdistana Îranê di heyamê tekoşîna xwe de, seba rastbêjî û berçavgirtina xwestek û baweriyên civaka Kurdewarî yê bûye heval û hemdemê hertimî yê xelkê Kurdistanê. Her wiha li mal, zevî, rez û baxan, dukan û bazaran û di gotineke kin de, li cihê kar û jiyanê heval û hemdemê piraniya tex û qatên xelkê Kurdistanê ye.

"TISHK TV" bi hêja û rêzgirtinê ji xebata mandînenasane ya Dengê Kurdistana Îranê dinêre û tevî bilind nirxandina xebata pir serfirazane a vî dengê neteweyî, 27'emîn salvegera avakirina vê radyoyê ji gişt azadîxwazên welatê me bi giştî û nemaze xebatkar û rêveberên wê dike û destegulên wefa, emegdarî û mandînenasiyê bi hurmet ve li berçêla wan dide.

agiri

Rojnameya panzdehrojî ya siyasî, çandî û giştî
Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê diweşîne

http://www.kurdistanmedia.com/kurmanci/index.php
Navenda bingehîn ya xebata Agirî li Kurdistanê ye.
Navnîşana derveyî welat: AFK B.P. 102- 75623 Paris CEDEX 13 –FRANCE

E - Mail:
agiri2003@hotmail.com
agiri2003@googlemail.com

# Berga Yekem Ya "Albûma Şehîdan" Çap û Belav Bû



Di wan rojan de, Komîsyona Civakî ya PDK Îranê di xebateke pîroz de û ji bo rêzgirtin û hertim zindîragirtina bîr û rêya Şehîdên Kurdistanê, berga yekem a "Albûma Şehîdan", çap û belav kir.

Di vê albûmê de ku di pêxema gotinên pir biha yên Serkarwanê Şehîdên Demokrat Dr. Qasimlo de ku dibêje "Her gelek ku azadiyê bixwaze, divêt ku buhaya vê azadiyê jî bide" û "Baştirîn xelat ji Şehîdan re domandina rêya wan e", dikeve ber çavê xwendevanan, nav û wêneyên şehîdên Kurdistanê hatiye weşandin.

Ev albûme pêkhatiye ji beşên weke destpêk, jiyannameya Pêşewayê nemir Qazî Mihemed, Şehîd Dr. Qasimlo, Şehîd Dr. Şerefkendî, wêne û pênaseyên Şehîdên Komîteyên Mehabad, Bokan, Serdeşt, Bane û Rebetê.

Em jî weke malbata weşana Agirî, destxweşiyê dibêjin Kadro, Pêşmerge û berpirsên Komîsyona Civakî ya PDK Îranê, seba vî karê wan ê pîroz û hêviya serkevtinê di kar û xebata wan re dikin ji bo weşandina bergên din yên "Albûma Şehîdan".

Hêjayî gotinê ye ku ji aliyê Komîsyona Civakî ya PDK Îranê ve, hebek ji vê albûmê pêşkêşî pirtûkxaneya Desteya Weşana Agirî, hatiye kirin.

# Li Kurdistanê Di Du Salan De, 2043 Keç Hatin Sinetkirin



Şandeke rêxistina Wadiyê ya Almanyayê digel rêvebira şaxa Hewlêrê ya rêxistina Wadiyê, ***Çîmen Salih***, di roja 23.06.2007'an serdana Buroya Herêmê ji bo Kar û barên Jinan kir û bi Wezîra Herêmê ya ji bo Kar û barên Jinan re, **Dr. Cînan Qasim** hevdîtin pêk anî. Di hevdîtinê de li ser rewşa jinên gundên Kurdistanê gotûbêj hate kirin.

Rêvebira şaxê Hewlêrê ya rêxistina Wadîyê, Çîmen Salih bal kişand ser sinnetkirina keçan û aşkere jî kir ku di navbera salên 2005-2007'an de, di 112 gundên Kurdistanê de, 2043 keç hatine sinnetkirin.

**Çavkanî: Wîkîpediyaya Kurdî**




# Orhan Dogan Jiyana Xwe Ji Dest Da



Parlamenterê DEP'ê yê berê û berbijarê Parlametoyê yê serbixwe Orhan Dogan di encama kirîza dil de, roja înê, 29'ê Hezîrana 2007'an jiyana xwe ji dest da.

Orhan Dogan ji bo ku beşdarî Festîvala Bazîdê ya çandî û hunerî bibe, çûbû Bazîdê. Li wir di dema axaftinekê de li ser sehneyê, kirîza dil derbas kiribû. Doktorên wî gotibûn, ew dereng gihandibûn nexweşxaneyê.

Hêjayî gotinê ye ku Orhan Dogan di sala 1955'an de, li Kerborana Mêrdînê ji dayîk bûbû.

***Desteya Weşana Agirî*** behî û sersaxiyê ji neteweya Kurd û nemaze malbata nemir Orhan Dogan dike.

# Şimtî Dermanê Romatîzmê



Li ser wan mifahên ku Şimtî(zebeş) bo mirov heye, pispor dibêjin şimtî li dema xwarinê de mîdê mirov sivik û riviyên mirov jî hênik dike, mîveyek terr e ku tênîtiya mirov jî dişkine. Herwiha givaşê bo paldana mîzê tîne. Serbarê wê ku bo romatîzmê baş e, herwiha mirov ji nesaxiya tayfoyîdê jî diparêze.

Piştî encamdana çend vekolînan derket ku şimtî bi vîtamîna **C** gellek dewlemend e. Lê di vîtamîne **A** de hejar e. 90-%93 av e, 6-%8 şekir e. Hinek jî Nîkotîng, Fosfor, Putasiyom û kolor têde ye. Dindikên wê jî ku xwarinek bi sûd e pêkhatiye ji %43 rûn, %15.7 şekir û %27 Porotîn.

Lewre ya baş eve ku her danekê piştî nan xwarinê mirov Şimtiyê bixwet.

***Çavkanî: Kurdistan TV***